# Nerîna Lîderan



Mes`ûd Barzanî: “Nabe hêzên neyasayî di Şengalê de hebin”.



Netanyaho: “ Îsraîlê êrîşî ser wan çek û teqemeniyan di Sûriyê de kir, ku ji bo Hizbullahê hatibûn şandin”.



Mihemed bin Selman: “Erebistan digel metirsiya rejîma Îranê û terorîzmê berbirû ye”.



Erdoxan rû li Tirkên akinciyê Ewropa: “Pênc zarokan bînin dinyayê, ne sê zarokan”.

## Heyeteke PSK`ê serdana Hêza Taybet kir

**Heyeteke PSK`ê bi serperestiya Mes`ûd Tek sekreterê vê partiyê serdana Hêza Tyabet a PDKÎ kir.**



Roja Yekşemiyê 23`ê Reşemê Mes`ûd Tek sekreterê PSK`ê digel heyetekê serdana Hêza Taybet a PDKÎ li sînorên Rojhilat kir, û ji aliyê berpirsyarên Hêza Taybet ve bi awayê “San” pêşwazî jê hate kirin.
Navbirî di vê serdana xwe de, ji bo hêza Taybet çend gotinek pêşkêş kirin, û piştevaniya xwe ji bo Rasan a Rojhilat eşkere kir.
Sekreterê PSK`ê herwisa pêdagirî kir ku di her dem û wexteke xebatê de, ew pişteniya PDKÎ û xebata rewa ya Kurdistana Rojhilat dike.

## Şandeke PDKÎ di kongireya Progressive Alliance de beşdarî kir



**Rojên 12 û 13`ê Adara sala 2017`an şandeke PDKÎ ku pêk hatibû ji Luqman Ehmedî endamê komîteya Navendî a PDKÎ û berpirsê pêwendiyên derve ên welat, û Hîwa Behramî cihgirê berpirsê pêwendiyên derve û nûnerê PDKÎ Li Alman û Utrîşê, beşdarî di yekemîn kongireya Progressive Alliance de kir, ku di bajarê Berlînê de pêk hat.**

Di destpêkê de, berpirsa pêwendiyên derve ên Partiya Sosyal Demokrat a Alamn, û rêkxerê giştî ê Progressive Alliance ”Wînov” bixêrhatina hemû beşdaran kir, û îşare bi vê kir ku zêdetir ji 100 partiyan li he rçar aliyên cîhanê endamê Progressive Alliance ne ne.
Navbirî serbarê vê ku bas ji sedemên cudabûna ji Enternasyonala Sosyalîst kir, bas ji vê jî kir ku mecal û derfeta reforman di vê saziyê de nemaye, û vê rêkxirawê nekariye xwe tevî guhertinên cîhanê rêk bixe.
Di beşeke vê kongireyê de, Luqman Ehmedî bi nûnertiya PDKÎ gotarek pêşkêş kir. Navbirî di destpêkê de, kêfxweşiya xwe anî ziman di vê derheqê de ku Progressive Alliance kongire pêk aniye, û got: PDKÎ li ser vê baweriyê ye, ku xetên giştî bo siyaseteke pêşkevtinxwazane, dibe di siyaseta fermî ya hemû partiyan de reng bide. Çê nabe ku beşek ji endaman di Progressive Alliance de xeteke giştî pesend bikin, ku bas ji nehêlana dîktatoriyê û zulm û zordariyê bikin, lê di heman demê de, beşek ji partiyan bi taybetî beşek ji hizbên Ewropî ên endamê Progressive Alliance hewl bidin, baştirîn pêwendiya wan digel welatekî dîktator wekî Komara Îslamî hebe, û guh nedin tekoşîna neteweya Kurd li Rojhgilata Kurdistanê de. Di beşên cur bi cur de, gellek kesayetiyên wekî serokwezîrê Swîdê, berpirsê giştî ê Partiya Sosyal Demokrat a Swîdê Monîka Xaviyer, Sekreterê giştî ê Partiya Sosyalîst a Irogowayê, berdevkê Kongireya Neteweyî ya Hind (Partiya Gandî), Rêberê Hizba Kar ya Norwêjê, serkomarê pêşîn ê Komara Tanzanyayê Wîlyam Mikapa axavtin kirin.
Di heyama du rojan karê kongirê de şanda PDKÎ digel çendîn partiyên endam di Progressive Alliance de hevdîtin pêk anîn. Hêjayî basê ye ku PDKÎ di destpêka avakirina vê rêkxirawê ve, endamê fermî ê vê rêkxirawê bûye bi maf dengdan û xwe kandîdkirinê bo hemû postên vê rêkxirawê. Progressive Alliance roja 22`ê gulana 2013`an hatiye avakirin.

## Alman û Fransayê li dijî Erdoxan daxuyaniyek belav kirin

**Angila Mirkil û Franswa Oland bi weşandina daxuyaniyeke hevpar, ragehandin ku em ji Erdoxan qebûl nakin ku welatên Ewropayî wekî welatên serdema Nazîsmê bi nav bike.**

Li gora nûçegihaniyan, Mirkil û Oland ragehandin ku wan li ser vê mijarê bi hev re axivîne, û li dijî axavtinên Erdoxan ew hevdeng in.
Erdoxan û çavûşoxlo bi rexnekirina tund a Alman û Hulendê, ragehandibûn ku kiryarên wan wekî kiryarên Almana Nazî ne.
Gellek siyasetvanên Ewropayî li dijî van gotinên Erdoxan helwest girtine.
Bi nêzîkbûna dema rapirsiya giştî li ser reforma di yasaya bingehîn a Tirkiyê de, Tirkiye hewl dide di welatên Ewropayî de, ji bo alîgirên xwe mîtîngên propagendekirinê pêk bîne, lê welatên Ewropayî bi taybetî Alman û Hulendê heya niha helwestên tund li dijî vê hewla Tirkiyê hebûne.
Ew helwesta tund bû sedema sarbûna têkiliyên Alman û Hulendê û hinek welatên din ên Ewropayî bi Tirkiyê re.
Di navxw eya Tirkiyê de jî, hem HDP û hem jî CHP û hin partiyên din ên Kurdî jî li dijî vê reformê ne, û li se rvê baweriyê ye ku AKP dixwaze bi MHP`ê re li ser bingeha berjewendiyên xwe yên hizbî reforman pêk bînin, ne li ser bingeha demokratîzetirkirina destûra Tirkiyê.
Yek ji xalên girîng ên deskarîkirî ew e ku êdî di Tirkiyê de, serokwezîr namîne, û dijberên AKP li ser vê baweriyê ne, rakirina vê postê tenê di berjewendiya serkomarê Tirkiyê wate Erdoxan û partiya wî de ye. Herwisa serkomar dikare serokê partiya xwe jî be, lê pêştir serokwezîr dibû serokê partiya xwe.

**Xecîc Lahîcanî :**

## "Babê min ez li hembêz girtim û got, Ya Xec! tu cihê şanaziya min î, jiber ku di mal de keçek rûsor, di karê hizbî de dilgerim û di girtîgehê de xweragir bûyî".

H: Arif Vêlzî

Dewrana herî xweş a jiyana her mirovekî, temenê zarokatiyê ye digel malbata xwe. Digel dayîk û bab û xûşk û birayên xwe. Eva ku vê dewrana jiyanê ji her zarokekî tal dike, dûrî û bêpariya ji hebûna Dayîk û bab e. Wate çiqas zehmet û ne xweş e, ku mirov rojên herî xweş ên jiyana xwe, dûr ji dayîk û babê xwe derbzb bike. Xecîce Lacanî yek ji wan zarokên serdemê xwe ye ku her di zarokatiya xwe de ji dîtin û jiyana digel babê xwe bêpar bûye. Bi awayekî ku babê wê bi navê "Mela Ebdulrehman Lahîcanî" zêdetir ji 12 salan di girtîgeha

girtîgeha rejîma paşatiyê de ma. Bi sedema vê ku cihê baweriya xelkê bajarê Pîranşar û derdorê bû, di rêkxistina meşên nerazîbûna li dijî rejîma Paşatiyê li Pîranşarê û herweha piştî serkevtina şoreşê rola sereke dilîze, weke berpirsê PDKÎ li Pîranşarê.







rejîma paşatiyê de bûye.
Xecîce Lacanî keça "Mela Ebdulrehman Lahîcanî" sala 1961'an a Zayînî (1340) li bajarê Pîranşarê hatiye dinê.
Xecîce Lacanî derheq bi nasyariya xwe digel PDKÎ weha dibêje: "Min di zarokatiya xwe de PDKÎ nas dikir, eva jî vedigere ser jiyana siyasî ya babê min, jiber ku babê min endamê Komeleya "J-K" û herweha kadrê serdemê Komara Kurdistanê bûye. Babê min rêbaza Demokrat berneda, û li ser karên xwe yên Hizbî berdewam bû heya ku di sala 1953'an a Zayînî(1332) heyamî 2 salan ji aliyê "SAWAK'ê vê tê girtin. Piştre di dehika 40'î de careke din tê girtin û di despêkê de bi îdamê û piştre bi hepsa dirêjmideh tê mehkûmkirin. Wî çaxî ez û Muradê birayê xwe ji babê xwe dûr bûn, û dayîka min erkê babînî û daykîniyê ji me re dikir.
Dema şoreşa gelên Îranê li sala 1978'an dest pê kir, babê min 2 sal bû ji girtîgehê serbest hatibû berdan, wate heyamê 12 sal û 6 heyvan di

Piştî serkevtina şoreşê, serbarê babê min, mamê min "Wehab" û birayî min "Murad" jî bûne pêşmerge û çeka şerefê kirne milê xwe de. Eva bûne sedem ku ez her di zarokatiya xwe de PDKÎ û tevgera Kurd li Rojhilat nas bikim".
Xecîce Lacanî herweha derheq bi jiyana xwe ya hevpar dibêje: "Piştî ku hêza pêşmere bajar bicih hêlan, ez ji aliyê rejîmê ve hatme girtin, piştî srbestberdanê min biryar da ku ez tevlî refên pêşmerge bibim. Jiber ku min dizanî ku dayîka min dikare carnacar serdana me hemûya bike, lê bab û birayê min nikarin serdana me bikin. Lewra min biryar ku ez serdana babê xwe bikim, di vê serdanê de digel pêşmergeyek PDKÎ bi navê "Luqman Mêhfer", ku wî çaxî endamê Komîte Şaristan û berpirsê Navçê bû, û niha endamê Komîteya Navendî a PDKÎ ye, nasyar derketim, û piştre jiyana hevpar ava kir û berhema jiyana me kurek û 5 keç in ku hemûyan zanîngeh bi dawî anîne û jiyana hevpar ava kirine, tenê keça me ya biçûk bi

navê "Kanî" maye, û niha li Ewrûpayê akincî ye".
Xecîce Lacanî ku hemû temenê xwe di nava şoreşê de derbaz kiriye,



çavnihêriya xwe ji PDKÎ û hevjînê xwe yê pêşmerge weha tîne ziman: "Bi baweriya min PDKÎ piştî xebata xwe ya 71 salî û pitir ji 4 hezar şehîdên pêşmerge û 50 hezar şehîdên endam û xelkê sivîl, xwediyê erkek dîrokî ye, lewra ez weke endameke Hibzê ku bab û mam û bira û biraziyê min di refên hizbê de şehîd ketine, hêvî û daxwaz dikim ku berjewendiyên Hizbî bixin serweyî berjewendiyên takekesî, jiber ku me dujminek hov heye.
Herweha çavnihêriya min ji hevjînê min eva ye ku, weke berê li ser rêbaza xwe sor be, û tu astengek pêngavan lê sist neke, û li ser xebata xwe berdewam be".
Xecîce Lacanî roja herî xweş a jiyana xwe weha tîne ziman: "Rojên xweş kêm in, lê roja herî xweş roja daweta min bû, dema babê min û mamê min û birayê min hatin û pîrozbahiya xwe gotin min, û babê min ez li hembêz girtim û got, "Ya Xec" tu cihê şanaziya min î, jiber ku di mal de keçek rûsor, di karê Hizbê de dilgerim û di girtîgehê de xweragir bûyî, niha ku te jiyana xweş a bajar bi cih hêla û jiyana di nava şoreşê û digel

pêşmerge hilbijartiye, ez şanaziyê bi te dikim, wî çaxî min zanî ku min bi dilê babê xwe kiriye û ez pir kêfxweş bûm".

Xecîce Lacanî di hember de roja herî nexweş a jiyana xwe jî weha tîne ziman: "Bîreweriyên tal zêde ne, nizanim bas ji kîjan yekê bikim, şehîdbûna birayê min yê fermande, şehîdbûna rêberên Hizbê, şehîdbûna mamê min di salvegera şehîdbûna birayê min de, şehîdbûna babê min û wefata dayîka min ku weke "Xecê û Siyamend" ew û bavê min, li kêleka hevdu bi axa niştiman hatine spartin, an birîna nû ya Şehîd "Rasûl Mihemedzade"yê zawayê min, ku hemû ji hevdu biêş û jantir in, û dema çavê min bi "Arsan" ê kurê şehîd "Rsûl" û "Kinêr" a keça min dikeve, hemû birînê min ji nû ve kul dibin".
Xecîce Lacanî bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: "Peyama min eva ye ku, bê hêvî nebin, û şanaziyê bi xwe bikin, jiber ku hûn dayîk û xûşk û keçên şehîd, pêşmerge, girtiyên siyasî, kêm endam, çalakvanên siyasî û medenî, rewşenbîr, siyasetvan û hemû xebatkarên rêya serbestiyê ne.

## Raportnêra mafê mirovan a NY: Îdama girtiyan li ber çavê xelkê, dibe bê ragirtin



**Yekem raporta Asime Cehangîr raportnihêra mafê mirovan a NY bo karûbarên Îranê hate belavkirin.**

Di vê raportê de, Asime Cehangîr raportnihêra mafê mirovan a NY derheq binpêkirina mafê mirovan di Îranê de, bi taybetî îdaman, bertengkirina azadiya ramanê, û ferq û cudahîdanîna li dijî jinan û kêmaniyên olî nîgeraniya xwe nîşan daye. Derheq Kurdên Rojhilata Kurdistanê Navbirî ragehandiye ku:

1-Yek li ser pênc a bidarvekiriyan Kurd in.
2-Nîva girtiyên siyasî ên Îranê Kurd in.
3-Zêdetir ji 122 kolber bi sedema Kurdbûnê ketine ber destrêja hêzên Komara Îslamiya Îranê.
4-Pirsa zulma li ser Kurdên Yarsan ya Ehlê Heq cihê nîgeraniyê ye.
5-Kurdistan wekî xwe îşare pê hatiye kirin, ne wekî navçeyên Kurdnişîn yan …hwd.

Wê ji rejîma Îranê daxwaz kiriye, ku îdama zarokan ragire, û kesên di dema encamdana tawanan de, temenê wan kêmtir ji 18 bûye, îdam neke. Di vê raporê de daxwaz ji rejîma Îranê hatiye kirin, pêşiya azadiya çapemeniyan û ragehandinan berde, û kesên ku li ber bîr û boçûnên xwe hatine girtin azad bike.
Asime Cehangîr raportnêra mafê mirovan a NY bo karûbarên Îranê, pêdagiriyê dike li ser qedexekirina îşkenceyê, û reftarên tundûtîj li dijî tawanbaran, û ragehandiye ku hebûna cezayên wekî şellaqlêdan, korekirin, birîna endamên leşê girtiyan, û kevirbaranê di yasaya cezayî ya Îranê de, li dijî mafê mirovan e. Asime Cehangîr di meha Xermananê de, bû cihgira Ehmed şehîd, raportnêrê taybet ê mafê mirovan a NY bo karûbarên Îranê.
Hêjayî basê ye ku Komeleya Mafê Mirovan a Kurdistanê-Jinêv çavkaniya sereke ya binpêkariyên mafê mirovan li Rojhilat e bo raportnêra NY.

## Mihemed Nezerî nameyek ji Asime Cehangîr re şand



**Mihemed Nezerî ji girtiyên herî xwedîsabiqe, di Kurdistan û Îranê de, di nameyekê de bas ji êş û janên xwe û girtiyên mehkûm bi îdamê di Îranê de dike.**

Li gora gotina navenda demokrasî û Mafê Mirovan, ew girtiyê siyasî ku nîva temenê xwe di girtîgehê de derbaz kiriye, 44 sal temenê wî ye, lê di wêneyan de wekî pîrekî 70 salî dixûye. Mihemed Nezerî di heyama 23 salên hepsîmana di girtîgehên Urmiyê û Recayîşehr a Kerecê de, xûşk û dayîk û bavê xwe ji dest daye, tu carî nekarî di rêûresmên sersaxiya wan de beşdariyê bike.Navbirî di vê nameya xwe de, bas ji hepsa ebed wekî hokarek bo jinavçûna malbatên girtiyan dike, û ji Asime Cehangîr daxwazê dike, ku di navendên mafê mirovan de, pêregihîştinê bi vê pirsê bike.

Mihemed Nezerî di beşeke din ji vê nameyê de bas ji vê dike, ku tenê guneh û tawana girtiyan, hebûna baweriyên dînî û meshebî û gilî û gazindekirina li bêdadiyê di sîstema Komara Îslamî de ye, hûn baştir dizanin ku di girtîgehan de, çi belayekê tînin sere van girtiyan, û sîstema qezayî ya Îranê tu nirxekê nade canê mirovan.Navbirî di vê nameya xwe de, navê kesên wekî Mihemed Mêhdî Zaliye, Zahir Mostefewî, û Elîriza Keremiyê Xêyrabadî tîne, ku di girtîgehê de jiyana xwe ji dest dane.

Navbirî di wê nameyê de herwisa bas ji nexweşiya xwe dike û dinivîse ku: Serbarê vê ku li ser bingeha hizra pizîşkan, dibe ez herim nexweşxaneyê, tevî vê ku berpirsyarên girtîgehê îznê didin min, lê dezgeha Daweriyê, nahêle ez serdana nexweşxaneyê bikim. Lewra ez daxwaza ji we wekî rêportera NY di warê mafê mirovan de dikim, ku hewlekê bidin, bona vê ku hepsa ebed bê kêmkirin bo heyameke diyarîkirî, da ku girtî bikarin serdana malbatên xwe bikin, û mafê mifahwergirtina ji îmkanatên pizişkî û dermanî hebin.

## “NY” Dewleta Turkiyê bi kuştina berfireh ya Kurdan tawanbar kir

**Rêkxistina “NY” di daxûyaniyekê de, dewleta Turkiyê bi binpêkirina berfireh ya mafê mirovan di Kurdistana Bakûr de, û herweha kuştina Kurdan û wêrankirina gund û bajarên wan di şerê digel PKK’ê de, tawanbar kir.**

Daxûyanî tekezê dike ku, ji sala 2015’an ve heya niha, hêzên ewlehiya Turkiyê, li jêr navê şerê li dijî gerîlayên PKK’ê li Başûrê Rojhilatê Turkiyê, bi berfirehî dest avêtine wêrankirin û kuştin û binpêkirina mafê mirovan. “NY” herweha daxwaza lêkolîna seba kuştina berfireh a Kurdan û binpêkirina mafên wan ên mirovî, di Turkiyê de kiriye. Zêd Re’id El-Husên ê Komîsêrê Bilind yê Mafê Mirovan di “NY” de dibêje ku, di wî şerî de pitir ji 2000 hemwelatiyên Kurd hatine kuştin û herêm bi tewahî hatiye wêrankirin, û tundûtîjî li dijî jinan hatiye encamdan û nêzî 500 hizar kes, ku piraniya wan Kurd in, aware bûne. Eva di demekî de ye ku rê nehatiye dayîn ku şandeya “NY” were Turkiyê û di vê derheqê de lêkolînên hewce encam bide, lewra ew sazî neçar e ku, pişta xwe bi çavkaniyên curbicur û wêneyên Mahwareyî ve girê bide. Hevdem digel rapora “NY”, dewleta Turkiyê ragehand ku, di Sûriyê de 71 şervanên Kurd yên girêdayî bi YPG’ê kuştine.



## Pirtûkek li ser tevgera Rojhilata Kurdistanê hate belavkirin

**Bergê duyem ji kitêba “Rojhilata Kurdistanê di belgenameyên nepenî ên Birîtanî de” hate çap û weşandin.**




Şerîf Hejarî mamostayê zankoya Silêmanî û hilgirê bawernameya masterê di siyaset û stratejiya Birîtanî de, bergê duyem ji pirtûka “Rojhilata Kurdistanê di belgenameyên nepenî ên Birîtanî de çap û belav kir.

Di vê pirtûkê de,komek belgenameyên girîng û veşartî di Wezareta Derve ya Birîtaniyayê de, taybet bi salên di navbera 1979-1984`an derheq rewşa Rojhilata kurdistanê û tevgera rizgarîxwaziya neteweya Kurd di vê beşa Kurdistanê de, hatine baskirin.

Di pêşgotina vê pirtûkê de hatiye: “Piştî şoreşa gelên Îranê, ku Kurd roleke bingehîn tê de lîst û şoreşgerên Rojhilata Kurdistanê çi di teorîzekirin û çi jî di rizgarkirina xaka Rojhilata Kurdistanê de, hebûna xwe bi awayekî bibandor selimandin, PDKÎ bi rêberiya rêberê herî rewşenbîr ê Kurd Dr. Qasimlo, û wekî partiya herî bibandor di vê beşa Kurdistanê de, serperestiya vê rizgarkirinê kir.

Li gora belgenameyên vê pirtûkê, û belgenameyên pirtûka “Rojhilata Kurdistanê 1979-1980 di belgenameyên di belgenameyên Birîtanî de”, û herwisa li gora çavkaniyên dîrokî ên sereke jî, Qasimlo bîrmendekî siyasî-stratejî û rêberekî rastîn ê Kurd bûye, û li derheq bûyeran de, berpirsyariya xwe “Kurdane û lojîkane” teorîze kiriye, û cî bi cî kiriye.

Mamosta şerîf Hejarî di rûpela xwe ya facebookê de dibêje ku ji bilî partiyên siyasî ên beşdar di tevegra rewa ya gelê Kurd di Rojhilata Kurdistanê de, komeke belgeyên girîng jî li ser kesayetiyên diyar ên tevgera Kurd ên wekî Dr. Qasimlo xûya dikin.

Di van belgenameyan de, giraniya PDKÎ di nava xelkê Rojhilata Kurdistanê de, %90 hatiye danîn, û derheq kesayetiya Dr. Qasimlo û PDKÎ hatiye: Qasiml bê hempa ye di behsên digel serkirdeyên fars de, û PDKÎ ku Dr. Qasimlo rêbertiya wê dike, meztirîn partiya Kurdî ye, û niha renge pêşmergeyên wî bigihîjin 40 hezar kesî jî.

Hêjayî base ye ku bergê yekem ê vê pirtûkê, ku taybet e bi belgenameyên veşartî ên Birîtanîyayê li ser Rojhilata Kurdistanê, di navbera salên 1979-1980`î de, ji aliyê Riza Fethullahnijad endamê PDKÎ ve, hatine wergerandin bo ser zimanê Kurd, û bi alîkariya mamosta şerîf Hejarî di sala 2016`an de hate çapkirin.

## Mihemed Mela Kerîm çû nav rêza nemirên cîhana rewşenbîriya Kurd

**Mihemed Mela Kerîm nivîskar û rewşenbîrê navdar yê Kurd koça daviyê kir.**

Li gor raporên hatine belavkirin, şeva derbazbûyî 21’ê Reşemeha 1395`an “Mihemed Mela Kerîm” nivîskar û rewşenbîrê naskirî yê Kurd, kurê mamosta “Ebdulkerîm Moderês” di temenê 86 saliyê de di bajarê Silêmaniyê de koça daviyê kir.

Ev nivîskarê binavûdeng ê Kurd di 14.08.1931’an di navçeya Biyare ji dayîk bûye, Mela Mihemed Kerîm kurê mamosta Ebdolkerîm Moderês e, ku xwediyê çend nivîs, û lêkolîna li ser dîvana helbestvanên kilasîk yên Kurd, û wergera zimanên cuda cuda bûye.

Navbirî kesekî kurdperwer bû, û bi hemû awayî di dema ku di bajarê Bexdayê de jiyan kiriye, ji aliyê desthilatdarên wê demê yên rejîmê ve bona belavkirina nivîsên wî, zext û zor lê hatiye kirin.

Mihemed Mela Kerîm,şarazayiyeke giştî di zimanê Farsî û Erebî de hebû, herwiha şarazayiyeke giştî di lehceya Hewramî de hebû, û her ji ber vê jî, karî wan nivîs û helbestên Kevn bi wan zimanan binvîsîne, û bîne ser lehceya Soranî, digel vê de jî her berdevam hewla vê daye ku nivîsa Kurdî ber bi pêşkevtinê ve bibe. Herwiha navbirê roleke girîng di rêxistinkirin û dubare darêştina helbestên Mewlewî da hebûye, û dubare pêdaçûna dîwana “Şîrîn û Xosrew” Xanê Qubadî kiriye, ku bi Hewramî hatiye nivîsandin. Mihemed Mela Kerîm yek ji nivîskarên mezin yê Kurdistanê ye, ku xwediyê çend nivîs û pirtûkan bûye, herwiha çend carî xelata rêzgirtinê dane.

Ev edîbê naskirî yê Kurd bi hevbeşî digel babe xwe, dîwana Nalî, Mehwî, Selam û Bêxod çêkiriye, û pirtûkek lêkolînê di derbarê Hacî Qadirî koyî de heye, û derheq bi zimanê Kurdî çend pirtûkên din jî hene.Navbirî di sala 1949`an dest bi nivîsê kiriye, û di vê serdemê de babetên navbirê di rojnameya Nida û Jîn de hatine belavkirin.

Komîsyona Ragihandina PDKÎ tevî sersaxî li malbata navbirî û hemû edîbên Kurd, xwe di xema jidestdana wî kesayetiyê Kurd de şirîk dizane.

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Her malbat dîrokek e, ji yê ku zane bixwîne re, destanek e.
**A. de Lamartine**

Di her malbatê de melek jî hene, şeytan jî hene.
**Joseph Roux**

Di xortaniyê û spehîbûnê de li êqil megere.
**Homeros**

Bêaqil ji biaqilan hindik tiştan hîn dibin, lê biaqil ji bêaqilan pir tiştan hîn dibin.
**Cato**

Aqilek baş e, du aqil baştir in.
A. Çexov

Kêmaqilî bi du celeban dibe: Yek jê ji dinîtî, ya din jî ji nezanî ye.
**Eflatun**

Mirov mezinahiya peyakî di nefsbiçûkahiya wî de dibîne.
**John Ruskin**

Roj bi birçiyan dirêj tên.
**Aleksis Kivi**

Neheqiya ku li yekî bi tenê dibe, ji civatê gişî re tehdîtek e.
**Montesquieu**

Gul çi ye? Ma navê wê tiştekî din ba jî qey wê evqasî ne bêhnxweş bûya?
**Shakespeare**

Navê ku tu ji lawê xwe re bihêlî, bila bavê te fedîkar dernexe.
**Baraccio**

# Zimanê Kurdî

**Li gorî agahiyên jorîn bersiva pirsiyarên jêrîn bidin.**

1. Mala Berfînê li ku ye?

   ................................
2. Mirov çawa dikare biçe mala Berfînê?

   ..............................................
3. Mala Dilgeş li ku ye?

   ............................................
4. Li pêşiya mala Dilgeş çi heye?

   .............................................
5. Mala Rojdayê li kîjan taxê ye?

   .............................................



## Mala Azad, Berfîn û Dilgeş

**Azad:** Mala we li ku ye, ez çawa dikarim bêm mala we?

**Berfîn:** Ji bo ku tu bê mala me, divê tu ji sinemayê heta kolana Azadiyê bimeşî, ji dawiya kolana Azadiyê li destê çepê bizîvirî û bi qasî sed gavî bimeşî, li destê rastê avahiyeke derîsor heye, ew mala me ye.

**Dilgeş:** Mala me jî li pişt mala Azad e. Li pêşiya mala me baxçeyekî hinaran heye.

**Berfîn:** Baş e, gelo kes mala Rûmetê dizane?

**Azad:** Erê, ez carekê çûbûm. Mala Rûmetê li jêrê mala me ye. Li jêrê mala me pirtûkxaneyeke mezin heye. Mala Rûmetê li çepê pirtûkxaneyê ye. Di navbera wan de xaniyek heye.

**Berfîn:** Baş e, malên me nêzîkî hev in. Lê mala Rojdayê ji malên me dûr e. Mala Rojdayê li taxa Jîngehê ye. Taxa Jîngehê taxa herî jêr a bajêr e.

**Dilgeş:** Em bi meşê nikarin herin mala Rojdayê, lê otobûs diçin heta ber mala wê.

138

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

**Ba**
- Ga di ser ra diborî, çêl li çema avis dibî.

Cemed/Qeşa
- Hanîka manîka, ferşê ber devê kanîka.
- Anîkê manîkê, çû ber kanîkê, rê neda heywanekê.

**Derya**
- Goleke şîn e, tije çirayên rengîn e.

**Coka avê**
- Tifenga xala, ya li der mala.
- Hade û made, korîka xo bade, here dinav zevîka bi qurad e.

**Dilopa avê**
- Tiştekî min heye, gora xwe bi xwe dikole.

Tiştê min yê mirî ye û bi xiwe gurê xwe dikulit
- Spî spî, dibê şil dike, erdê jî tim quldike.
- Fatimko, erdê simko.
- Sor sorik, erdê dikolik.
- Tiştê min li çik e û êdiz e.

**Befir/Berf**
- Hat wekî mîra, runişt wekî wezîra, çu wekî feqîra.
- Sipiye ne şekir e, difire lê bê per e.
- Gayê kejo, di esmanî re diajo.
- Ebabekrê li ber dîwara.
- Spiye ne şekir e, difire bê perr e, çiyan di bin xwe de digire.
- Dihêt şîr e, dirunit mîr e, diçit ebdal û êxsîr e.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

